## Nerîna Lîderan



Manûel Valls: “ Em rê nadin kurd bişkên”.



Lavrov: “Esed piştgiriya kongireya Sûçî dike”.



Jeff Sessions:“Trump dê guher tinan di dezgehên ewlehiyê de bikeariyê dike”.



John McCain: “Kurd hêjayî piştgiriya Amerîkayê ne”.

## Wezîrê Derve yê Firansayê: Em nikarin destêverdanên rejîma Îranê di deverê de qebûl bikin

**Rejîma Îranê tevî givaşên cîhanî û Herêmî, li ser dirustkirina alozî û destêverdan di welatên Rojhilata Navîn û kiryarên terorîstî berdewam e.**

“Jan îyû Ludiryan” Wezîrê Derve yê Firansayê, di civîna Şêvra Pêwendiyên Derve yên digel Amerîka de gotiye ku: Çalakiyên rejîma Îranê, gefek in li ser Rojhilata Navîn û herwiha berevajiyê berejewendiyên Washington û Fransayê ne.

Rejîma Îranê di Rojhilata Navîn de, di pey berfirehkirina desthilata siyasî û leşkerî a xwe di deverê de ye, ji bo ber bi pêşvebirina têoriya xwe ya dijî mirovahiyê.

Wezîrê Derve yê Firansayê, di vê civînê de îşare bi çalakiyên alozkirinê yên Îranê di deverê de kiriye û ragehandiye ku: Em nikarin destêverdanên rejîma Îranê, û pawanxazî û zêdexwaziyên wan qebûl bikin.

Rejîma Îranê di dawîn destêwerdanên xwe di Îraqê de, bi çekdarkirin a “Heşda Şe`ibî” û fermandarîkirina wê girûpê, dest bi ser Îraqê de girtiye, û di çarçoveya siyasetên pawanxwazî û zêdexwazî yên xwe de êrîş ser Başûrê Kurdistanê dike.

Rejîma dagîrker a Îranê, li Rojhilata Navîn di welatên weke: Yemen, Sûriye, Behryên, Îraq û Filistînê de, ji aliyê siyasî û leşkerî ve piştevanî dike, û bi dirustkirina girûpên terorîstî, destêwerdanê di nava karûbarên wan welatan de dike, û herwiha mejûlî vê ye daku desthilata xwe di welatên Afrîqayê de jî zêde bike.



Herwiha “Lurdyan”, zêdebûna bernameyên navikî yên Îranê, wekî metirsyekê li ser civika cîhanê dide zanîn.

Eva di halekî de ye ku, rejîma Îranê tevî givaş û dorpêçên cîhanî ji bo bidawîanîn bi çalakiyên navikî û mûşekî yên xwe, her wek berê berdewam e.

## Amerîkayê dorpêçên aboriyên li dijî rejîma Îranê dirêj kirin

**Wezareta Xizînedariya Amerîkayê gemaroyên aborî ên pejirandî ên pêşîn dirêj kirin.**

Li gora raporên belavbûyî roja Sêşemiyê 9`ê Rezbera 1396`an Waşintonê biryar da ku di çarçoveya yasaya naskirî bi “Katsa” (Xebata li dijî dijminên Amerîkayê ji riya dorpêçan ve) rîzbendek ji berpirsan û kompaniyayên Îranî ku digel Spaha Pasdaran a terorîst dest hene, xistin nava dorpêçan de.

Yasaya naskirî bi “Katsa” (Xebata li dijî dijminên Amerîkayê ji riya dorpêçan ve) bi taybetî li dijî rejîma Îranê û Kureya Bakûr tê cîbicîkirin. Ew biryar roja 11`ê Gelawêja 1396`an bi piraniya dengan di herdu meclisên Nûneran û Sinaya Amerîkayê de hatibû pejirandin. Li gora yasaya Katsayê, heyiya wan kes û kompaniyan di Amerîkayê de hatine bilokekirin, û tu Amerîkayiyekî mafê danûstandinê digel wan kesna nine, û herwisa ew kes nikarin bêne nava xaka Amerîkayê de jî.

Piştî vê biryara Amerîkayê pasdarê terorîst Ce`iferî fermandê vê rêkxirawa terorîstî got: Amerîka bi hêceta hêza mûşekî ya me, pirojeyasayek bi navê “Katsa” (Xebata li dijî dijminên Amerîkayê ji riya dorpêçan ve) li dijî Spaha Pasdaran cîbicî kir. Wî ragehand ku emê wekî namûsa xwe, ji hêza xwe ya mûşekî bergiriyê bikin.

Wezareta Xizînedariya Amerîkayê di daxûyaniyekê de belav kiriye ku rejîma Îslamî ya Îranê piştevaniya terorîzmê dike. Ew kesên ku dorpêçên aborî li dijî wan hatine dirêjkirin, ew in: “Mihemed Elî Ce`iferî, Yehya Rehîm Sefewî, Rostem Qasimî, Mihemed Hicazî, Perwîz Fetah, Murteza Rezayî, Ebdullah Îraqî, Elî Ekber Ehmediyan, Mihemedriza Neqdî, Husên Taib, Husên Selîmî û Ehmed Firûzendê”.

## “Têrîza Mey”: Bo serxwebûnê dibe Kurd digel Bexdayê gotûbêjê bike

Serokwezîra Birîtanyayê “Têrîza Mey” derheq bûyerên di navbera Herêma Kurdistanê û hikûmeta navendî ya Îraqê de daxwaza rêkevtina siyasî ya bilez kir, û ragehand ku bo pirsa serxwebûnê dibe ku kurd digel Bexdayê gotûbêjê bike.

Parlemantarekî Partiya Parêzgaran (muhafizekaran) jî bi navê “Cak Lopirêstî” bas ji girîngiya rola pêşmerge kir, û ragehand ku, rola pêşmerge li şerê li dijî DAÎŞ`ê de bibandor bû, û pêşmerge bû ku bi şerê li dijî DAÎŞ`ê aramî vegerande kolanên Birîtanyayê jî.

Ji aliyekî din ve çend kongresmenên Amerîkayî jî, roja borî di konferaseke çapemeniyê de li pêşberî avahiya Koşka Spî piştgiriya xwe ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê û rola pêşmerge re rageahandin, û bi tundî Trump rexne kirin ku di hemberî destêwerdanên rejîma Îranê di nava karûbarên welatên herêmê û êrîşa Heşda Şe`ibî de bêdeng bûye. Herwisa wan ragehandin ku “Birêt Mekgork” zanyariyên nerast dane kabîneya Amerîkayê. Wan kongresmenan hinek wêne belav kirin ku nîşan dida fermandê Hêza Quds ya Spaha Pasdaran Qasim Silêmanî fermandehiya şerê li dijî Kurdan kiriye, û milîşên Şî`e jî siwarî tank û wesayitên Amerîkayî bûne, û bi wan trombêlên leşkerî êrîşî ser Kurdistanê kirine. Herwisa wan bas ji Ebû Mehdî Muhendis jî kirin ku serbarê vê ku kesekî terorîst e, lê digel Qasim Silêmanî fermandehiya şer li dijî hevpeymanên wan kiriye, û deshilatdariya Amerîkayê jî bê helwest e li hemberî vê yekê de.

Yek ji wan kongresmenan ragehand ku tu ferqek di navbera Heşda Şe`ibî û DAÎŞ`ê de nine, tenê yek ji wan Sunî ye, û yek ji wan Şî`e ye, û her du jî dijminatiya Kurdan dikin.

Herwisa bas ji vê hate kirin ku Îran dixwaze ji riya xeta Şî`e ve bigihîje sînorên Îsraîlê, û dibe Trump derheq vê yekê de helwest hebe.

# Mes`ûd Barzanî weke pêşmergeyek wê li ser karê siyasî berdewam be

**Mes`ûd Barzanî serokê Herêma Kurdistana Başûr, bi belavkirina peyameke dîrokî, dest ji kar kêşa.**

Nûçegihanên Hikûmeta Herêma Kurdistanê, belav kirin ku: Di şeva derbazbûyî de, 7`ê Xezelwera 1396`an de, Mes`ûd Barzanî, serokê Herêma Kurdistana Başûr, bi awayê fermî dest ji pileya serokatiya Herêma Kurdistanê hilgirit, û desthilata xwe dabeş kir.
Mes`ûd Barzanî, tevî ewê ku heyama serokatiyê ji bo 8 mehên din hatibû dirêjkirin jî, lê belê navbirî ev biryara red kir.

Navbirî bas ji vê yekê kir ku: Ew weke pêşmergeyek di nav gelê xwe, û pêşmergên ezîz de, li ser xebat û têkoşanê ji bo bidestanîn mafên rewa yên gelê kurd û berevanîkirin ji destkevtên neteweya me berdewam dibe.

Serokê Herêma Kurdistanê di beşeke din a axavtinên xwe de, bas ji vê yekê kiriye ku: Me wisa dizanî ku Civata Navneteweyî rêz ji bo qurbanîdana gelê Kurd digire, û Bexada jî wefadar dibe, lê belê mixabin me dît ku her di vê demê de hemû hewla wan eva bû daku wan hewlan bi qazanca xwe tewaw bikin.

Barzanî bas ji vê yekê jî kir ku ewên ku Amerêkayê ew weke terorîst binav dikirin, me dît ku siwarî tankên “Ebramiz” bûn û êrîşê ser kurdistanê kirin, ev xwe cihê pirsiyarê ye.

Herwih navbirî derheq rewşa niha a Kurdistanê, bas ji vê yekê kir ku: Îmkan nine em rewşa niha a Kurdistanê qebûl bikin û Kerkûk nasnameya Kurdistanê ye, û mirinê hildibijêrim û nahêlim kerameta me bişkê.



Desthilgiritin ji kar bi tu awayekî babeteke asayî nine di Rojhilata Navîn de, û eva jî hûnereke ku kêm kes di jiyana xwe de encam dide, Mes`ûd Barzanî yek ji rêberên Kurd di Rojhilata Navîne de ye, ku dest ji posta mezin weke rêberê welatekî bi awayekî Demokratîk hilgirt, û heta îzin neda ku endamên malbata wî jî xwe ji bo posta serokatiya Herêma Kurdistana Başûr berbijêr bikin.

Mes`ûd Mistefa Barzanî, 16`ê Tebax 1946`an di bajarê Mehabad a Kurdistana Rojhilat de hatiye dine, û di hilbijartinên serokatiya Encumena Nîştimanî a Kurdistanê de, di 12`ê Hezîrana 2005`an de, weke yekem serokê Herêma Kurdistanê, ji aliyê Encûmena Nîştimanî a Kurdistana Başûr ve hate hilbijartin.

# Katalonyayê serbixweyiya xwe ragehand



**Roja Înê 70 endamên parlementoya Katalonyayê dengê “Erê” dane serxwebûna herêma Katalonyayê, û tenê 10 dengê “Na” hebûn.**

Serbarê vê ku dewleta Îspanyayê dijayetî digel birêvebirina referandomê kiribû, lê deshilatdarên herêma xwebirêveber ya Katalonyayê pêdagirî li ser referandomê kirin û roja 9`ê Rezberê referandom di herêma xwe de bi rê ve birin. Di wê referandomê de ku %43 ji wan kesên ku mafê dengdanê hebûn beşdarî kirin, %90 ji wan dengê “Erê” dane serbixweyiyê.

Niha hêzên polîsê Îspanyayê avahiya Wezareta Navxwe li Katalonyayê dorpêç kirine, û Dadgeha Yasaya Bingehîn jî sê roj derfet daye Katalonyayê ku ragehandina serxwebûnê hilweşîne.

Berdevkê serdozgeriya Îspanyayê jî ragehandiye ku ewê dozê li dijî serokê Herêma katalonyayê bi tohmeta serhildanê vekin.

Ragehandina serxwebûnê di demekê de bi rê ve çû, ku welatên Firansa, Îngilîs, Alman, Amerîka û serokê Komîsyojna Ewropayê ragehand ku ew serxwebûna wê herêmê bi fermî nas nakin.

Îspanyayê di sala 2006`an de, hinek deshilat dane herêma Katalonyayê, û xelkê wir jî wekî “netewe” bi nav kir, lê xelkê wir, ser vê baweriyê ne ku serbarê vê ku herêma wan, xwediyê %20 a berhemanîna nexalis a navxweyî ye, û beşa herî dewlemend ya Îspanyayê di warê pîşesaziyên wekî pîşesaziya hesin, xûrak, dermanan û pîşesaziya kîmyayî ye,û di biyavê torîsmê de jî dahateke baş heye, lê hikûmeta Îpanyayê heqê wan nadê,û wan diçewsîne.

Di sala 2014`an de referandomek ji bo serxwebûnê di herêma Katalonyayê de bi rê ve çû, ku rêberên vê herêmê, ew referandom wekî rapirsiyeke nefermî bi nav kirin, wê demê tenê 1 li ser 3 ji wan kesên ku mafê dengdanê hebûn, tê de beşdarî kirin, û %80 ji beşdaran dengê “Erê” dane serxwebûna Katalonyayê. Di hilbijartina parlemanî ya sala 2015`an de jî,partiyên cudahîxwaz %48 a dengan di hemberî partiyên alîgirê Hikûmetê de bi dest xistin

# Dorpêçên nû yên Amerîka li dijî Îran û Hizbullahê

**Piştî îlankirina stratejiya nû a serokomarê Amerîkayê derheqê rejîma Îranê de, tewahiya sazî û rêxisitnên hikûmetî yên wî welatî bi awayekî bilez û berdewam mijûlî lêkolîna li ser stratejiya nû a Amerîka ne.**

Li gora rapora nûçegîhaniya “Reuyters”ê, hejmarek ji parlemantarên Amerîkayê 3 pirojeyasayên nû derheqê danana dorpêçên berfireh yên li dijî Îran û Hizbullah a Lubnanê, radestî Parlemana wî welatî kirine, û her 3 terh di roja Çarşemî 4`ê Xezelwerê de bê tu djiyayetiyekê hatine pejirandin. Herwiha li gora van pirojeyasayên pêşniyarkirî hemû kes, sazî û kompaniyên ku di dabînkirina çavkaniyên aborî û herwiha rakêşana hêza mirovî de, digel Hizbullahê alîkariyê bikin, wê bikevin bin dorpêçana de.

Pejiradina wî terhî piştî axavitinên “Mich Pens”, cîgirê serkomarê Amerîka, di merasima bîranîna êrîş a li ser binkeya hêzên deryaî ya Amerîka di Bêyrûtê de hatibû encamdan, û îlankiribû ku Amerîka bêkar narûnê, daku Ayetûllahên ku di Tehranê de ne, pîlana êrîşeke din li dijî wî welatî dabirêjin.

Herwiha pirojeyasaya duyem îşarê bi cinayetên şer yên Îran û Hizbullahê dike, û li gora wê pirojeyasayê Îran û Hizbullaha Lubnanê, bi sebeba mifahwergiritina ji hemwelatiyan, weke mertalên mirovî, dikevine ber dorpêçan û terha sêyem jî ji NY dawxaz dike daku Hizbullaha Lubnanê bixe nav rêzbenda girûpên terorîstî de.

Girîngiya wan terhan di vê yekê de ye ku, ne tenê bi berfirehkirina asta dorpêçan zêde kiriye, belku bi giştî saziya Hizbullahê weke girûpeke terorîstî nas kiriye û dixe ber dorpêçan de.

Hêjayê gotinê ye ku, terha çaremîn jî di destûra karê Parlemana nûnerên Amerîka de ye, ku derheqê bernameya mûşekî a Îranê de ye, û herwiha ev pirojeyasa bi armanca kêmkirina bernameyên mûşekî yên Îranê hatiye dirustkirin, û baleke taybetî dide mûşekên ku hêza hilgiritna “kulahek”ên navikî hene.

## Nûnerê Welîyê Feqîh yê bajarê Urmiyê biryarek li dijî hemwelatiyên Kurd derxis



**Ajansa Kurdpa: Nûnerê Weliyê Feqîh yê bajarê Urmiyê bûyera azara cînsî a li ser dersxwaneka Kurd û nerazîbûnên piştî vê bûyerê bi fitne dide zanîn.**

Li gora nûçeya gihîştî Ajansa Kurdpa, Se`îd Mehdî Qoreyşî nûnerê Weliyê Feqîh yê bajarê Urmiyê, di gotinên xwe yên roja Înê 5`ê Xezelwera 1396`an de, nerazîbûna hemwelatiyên Kurd li hember azara cînsî a li ser keçeke temen 12 salî ji aliyê xizmetkarê xwandingeha "Rahê Şoheda" de nebaş da zanîn.

Navbirî bas ji vê yekê kiriye ku: Ev bûyerane cihê baweriyê nînin, û dibe ku berpirs bi awayekî tund li dijî vê yekê ravestin, lê belê nabe ku hinke kes jî jê mifaha şaş wergirin, kesê tawanbar dibe ku radestî dadweriyê bê kirin, ne ku bi sedema vê kiryarê tirombîlan agir berdnê, û canê xelkê bixin metrsiyê de, û ew yek nayê qebûlkirin.

Nûnerê Weliyê Feqîh tekez kiriye ku: Hekî destdirêjî li ser namûsa Turk, Kurd, Şî`e û Sunî hate kirin, nabe xelk dakevine kolanan, û tirombîl û xwendingehan agir berdinê, ev kesên ku wan aloziyan dirust dikin mehkûm in.

Di roja Duşemî 1`ê Xezelwera 1396`an de, piştî azardana keçeka kêm temen ji aliyê xizmetkarê xwendingê yê Turk ve, hemwelatiyên bajarokê Îslamava a girêdayî bajarê Urmiyê, piştî bihîstina vê kiriyara qirêj, xwendingeh û avahiya wî xizmetkarê Turk û heta binkeyeke besîcan di vê pêwendiyê de agir berdanê.

Di vê pêwendiyê de, hêzên Îtila`atê di heyama du rojên derbazbûyî de, êrîş kirine ser malên hejmarek ji hemwelatiyên akincî ên bajarokê Îslamava, û ev binçav kirine.

Di rojên derbazbûyî de, hêzên Îtila`atê, gef li malbata wê keça 12 salî ku destdirêjî lê hatibû kirin xweribûn, ku hekî ew di vê pêwendiyê de, digel medyayan gotûbêjê bikin, ewê bêne dadgehîkirin.

## Yekîtiya Pîşeyî a Mamostayên Kurdistanê, destdirêjiya bo ser keçeke dersxwan şermezar dike

**Yekîtiya Pîşeyî a Mamostayên Kurdistana Îranê, ji ber bûyera li xwendingeha "Rahê Şoheda" ku yek ji xwendingehên bajarê Urmiyê ye daxuyanyek belv kir.**

Deqa daxuyaniyê bi vî awayî ye:

Xelkê xwedîşeref ê Kurdistanê!

Mamosta û dersxanên ezîz!

Di rêkevta 29`ê Rezbera 1396`an de, di Xwendingeha "Rahê Şoheda" a di taxa "Kuştargah" a ser bi bajarê Urmiyê, ji aliyê karbidestekî besîcî yê wê xwendingehê ve, destdirêjiya cînsî tê kirin bo ser keçeka temen 12 salî a pola pênçem a destpêkî ya wê xwendingehê.

Herçiqas berpirsê vê xwendingehê ji kiryara qirêj a wî besîcî haydar bûye, lê belê bi gefan vê keça dersxwan ber bi mala wê ve dişînin, û gef jê hatine xwarin daku bas ji vê kiriyara qirêj ku derheqê wê de hatiye encamdan ji bo malbat xwe neke. Lê belê malbata wê dersxwanê, vê kiryarê dûr ji mirovahiyê dizanin, û herçiqas ku doz li dijî vê kiryara destdirêjiyê ya wî besîcê rejîmê tomar dikin, lê belê ji aliyê dezgeha ewlekariya rejîmê gef li malbata wê tê xwarin, daku dest ji vê dozê bikêşînin, lêbelê di 1`ê Xezelwerê de, hemwelatiyên bajarê Urmiyê ji vê kiryara nemirovane a wî besîcê rejîmê di vê xwendingehê de haydar dibin, û êrîşê dikin ser vê xwandingehê, û daxwaza sizadana wî besîciyê dikin. Lêbelê tu bersivek ji hemwelatiyên aciz û nerazî re nayê dan, û ev jî neçar dibin, beşek ji vê binkeya bêexlaqiyê agir berdinê.

Yekîtiya Pîşeyî a Mamostayên Kurdistana Îranê, nerazîbûna xwe li hember vê kiryara qirêj a wî besîcê rejîma Îranê nîşan didin, û daxwaz ji mamostayan û dersxwan û xelkên xwedî şeref yên Kurdistan û bixasmanî yên bajarê Urmiyê dikin bi lidarxisitna nerazîbûnên komî, kiryara besîcê rejîmê di xwendîngehên Rojhilata Kurdistanê de eşkere û şermezar bikin.

**Yekîtiya Pîşeyî a Mamostayên Kurdistana Îranê**
**2`ê Xezelver a 1396`an**

## Wênegirekî Kurd şeş sal sizaya girtîgehê bi ser de hate sepandin

**Ajansa Kurdpa: Dadgeha Înqilab a bajarê Urmiyê, wênegirekî Kurdê xelkê bajarê Pîranşehrê, bi 6 sal û 3 mehan girtîgehê mehkûm kir.**

Li gora rapora gihîştî Ajansa "Kurdpa"yê, wênegirekî Kurd xelkê bajarê Pîranşehrê yê bi navê "Se`îd Ehmedî" kurê Mihemed piştî 8 mehan bêçarenivîsiyê, 6 sal û 3 meh hukmê girtîgehê bi ser de hate sepandin.

"Se`îd Ehmedî" di dadgeha Înqilab a Urmiyê de, bi tohmeta alîkarîkirin digel yek ji partiyên Kurd yên opozisyona Hikûmeta Îslamî a Îranê hatiye girtin.

Di roja Înê 2`ê Reşemeha 1395`an de, hêzên Îtila`atê, êrîş kirin ser dukana wênegirê Kurd a bi navê "Nice" û ev binçav kiribûn. Çavkaniyên nûçegihaniya "Kurdpa"yê, piştrast kirin ku malbata "Ehmedî" xwediyê derbazbûyiyeke siyasî ye û bavê wî jî di destpêka şoreşê de ji aliyê hêzên ewlekarî yên hikûmeta Îranê ve hatiye bêserûşûnkirin, û birayê Se`îd jî, di sal borî de, ji zanîngeha Urmiyê hatibû derxistin.



Her di vê pêwendiyê de, roja Sêşemî 2`ê Xezelwera 1396`an de, taya yekem a Dozgeriya leşkerî a Urmiyê, serbazê Kurd yê bi navê "Sidîq Eynî", bi bê hebûna parêzvanê destnîşankirî, 10 sal cezaya girtîgehê û dûrxistina bo girtîgeha bajarê Erdebîlê mehkûm kirin.

Dozgeriya leşkerî a Urmiyê ev serbazê Kurd bi tometa sîxorîkirina ji bo yek ji partiyên Kurd yên Opozisyona hikûmeta Îslamî a Îranê, mehkûm kirin.

Ev hukmê giran yê dadgehê bi bê amadebûna wî serbazê Kurd di dadgehê de hatiye dan, û ev di roja Pêncşemî 4`ê Xezelwerê ji sepandina vî hukmê giran yê girtîgehê hatiye haydarkirin.

# Îranê piştî mirinê qedexe danî ser pirtûkên Derwîşiyan

**Wezareta Kultura Îranê belavkirina pirtûkan derbarê jiyan û berhemên nivîskarê navdarê Rojhilatê Kurdistanê Elî Eşref Derwîşiyan de qedexe kir.**

Nvîskarê pirtûka "Naskirina Elî Eşref Derwîşiyan", Areş Sencabî ragihand, ji 10 salan ve wî daxwaza moletê bo belavkirina wê pertûkê kiribû, lê piştî 10 salan jêre gotine ku nabe ew pirtûk were belavkrin.

Sencabî dibêje, ew 9 salan li benda pêdaçûna pirtûka wî bû, lê ew dezgeha weşanê ku biryar bû pirtûka wî belav bike, ragihand ku êdî ew hewla wergirtina moletê bo wê pirtûkê nadin. Bi gotina Sencabî, ew dest ji belavkirina wê pirtûkê bernade û careke din wê daxwaza moletê bike.

Elî Eşref Derwîşiyan, roja Pêncşema heftiya derbasbûyî li bajarê Kerecê koça dawiyê kir. Wî bêhtir ji 50 pirtûkên roman, çîrok û lêkolînên keltûrî bi zimanê farsî belav kirine.

Dezgehên ewlekarî yên Îranê rê nedan ku termê wî li bajarê Kirmaşanê cihê jidayîkbûna wî were veşartin. Ew li Kerecê hat veşartin û di merasîma veşartina wî de tu berpirsekî Îranê beşdar nebûn.






Lê hejmareke mezin ji xelk, nivîskar û çalakvan beşdar bûn, û Elî Eşref Derwîşiyan wekî nivîskarekî azadîxwaz û xwazyarê dadperweryê dane naskirin.




# Çîroka Demirtaş dibe fîlm

**Parlementerê Partiya Demokratîk a Gelan (HDP) yê Enqerê Sirri Sureyya Onder diyar kir: "Emê çîroka Selahattin Demirtaş bikin film."**

Sirri Sureyya Onder ji rojnameya Cumhuriyetê re ragihandiye: "Ji dema ku min di nav vê partiyê de dest bi siyasetê kir heta niha bi sedan, bi hezaran dostaniyên min ên nemir çêbûn. Lê rehenda dostanî û piştevaniya ku min bi Selahattin Beg re pêk anî, gellek cuda ye."

Onder herwiha diyar kiriye: "Di demên herî aloz a Tirkiyê de me bi hev re siyaset kir. Wezareta Dadê rê nade ez Selahattin Beg bibînim. Min jî bi rêya parêzer û hevalên ku diçin cem wî, her dem pêşniyara nivîsandinê kir."

Li ser pirsa "Gelo emê projeyên nû yên Demirtaş bibînin?" Sirri Sureyya Onder wiha bersiv daye:

"Belku emê ji pirtûkeke wî bikevin rê, belku jî Selahattin Beg dê ji me re surprîzek bike û çîrokeke nû binivîse. Emê çîroka Selahattin Demirtaş jî bikin film. Eger ew jî bipejirîne, ezê bibim derhênerê fîlmê. Qonaxa nivîsandin û çêkirinê, emê bi hev re çareser bikin. Rudaw



# Zimanê Kurdî

Qursên Kurdî, A. Karabax

1

A) Beşên Hokeran :

Hoker, li gor çawanî û erkên xwe li pênc beşên bingehîn dabeş dibin :

1. Hokerên çawaniyê(çawanî, wesfîn) :

a. Piraniya peyvên van ji rengdêrên wesfîn pêk tên. Ji aliyê peyvsaziyê ve ev, bi giştî bêguhartin bikar tên û çawaniyên çalakiyan didin nasîn.

b. Bo kifşkirina peyvên wan, pirsên bi (çawa/çawan, çilo/çiton, çi, hwd) li lêkerên pêveberî tên kirin.

Ji hokerên çawaniyê : Dereng, zû, tenê, bi tenê, bi misogerî, bêşik, teqez, bêguman, tavil, edîbane, evdalkî, hêdî hêdî, lez, bi lez, wirane, hwd.

a. Ji wan ên ku bi alikariya daçekê(bi) çêbûne : Bi lez, bi misogerî, bi tenê.

b. Ji rengdêrên çawaniyê yên bingehîn : Bilind, biçûk, mezin, xweşik, hwd.

Mînak 515 : Hokerên çawaniyê : Çend bikaranîn :

a. Gulçîn hêdî hêdî dimeşiya. b. Rojda û Nalîn bi lez dimeşiyan.

c. Niha ev keç bi tenê dixebite. ç. Gul û Gulçîn xweşik dikenin.

2. Hokerên demê(demkî, demîn) :

a. Ev hoker ji aliyê demê ve çalakiyan didin nasîn.

b. Bo kifşkirina peyvên van, pirsên bi (kengî, çi demê, çi wext, hwd) li lêkerên pêveberî tên kirin.

c. Dem, li sê beşên sereke dabeş dibin : Dema niha, dema borî û dema bê. Peyvên demîn, bi van beşan ve têkildar in.

Ji hokerên demê : Îro, duh, pêr, sibehê, sibeh û êvar, sibehê zû, zû, roj bi roj, rojekê, êvarkî, berê êvarê, nîvro, piştî nîvro, gav, wext, berî bîskekê, saet, bi saetan, meh, îsal, par, biharê, havînê, payîzê, zivistanê, hwd.

Mînak 516 : Hokerên demê : Çend bikaranîn :

a. Nalîn berê êvarê dixebite. b. Ew her sibeh diçe kursa dantêlê.

c. Rojhat wê havînê li mala kalê xwe dima. ç. Wî li wir bi roj kar dikir.

3. Hokerên cih û bergehê :

a. Ev hoker ji aliyê cih û bergehê ve çalakiyan didin nasîn.

b. Bo kifşkirina peyvên van, pirsên bi (li ku, li kuderê, ji ku, ji kuderê, di ku de, bi ku ve, ji ku ve, hwd) li lêkerên pêveberî tên kirin.

Ji hokerên cih û bergehê :

a. Ji yên cihê : Vir, li vir, wir, li wir, pêş, li pêş, paş, li paş, jêr, jor, nêz, derdor, dûr, her derê, dereke din, li çepê, li rastê, hwd.

## Tiştonek



A: Mahir Berwarî

Metelokên xizmanê

Ev meteloke girêday têkelî û peywendiyên malbatî ne.
Gelek zarok bêy bersiva van meteloka bizanin, êkser bersiv didin, dibe ev bersive axaftinên pîs bin û neguncin li gel meteloka, zarokên dî sixirka/hetka wî/wê dibin û pê dikenin.

- Bi şelê te, bi şerwalê te, xizmê xalê te, bête mala te, dê çi deyê? (* Bab e) (* Hinek axaftinên pîs dibêjine xwe bêy pê bizanin. Hetka wan diçît)

- Mêrdî bûkî nenkit, hate malit, çî edeytê? (* bawik/bab)

- Take xûşkî xalt e, pûrrîşit niye? (* dayik)

- Kurî bawkt e, kurî daykt e, biraşit niye? (* xot/tu bi xwe)
- Şîrînok li darînok, darînok li gobelok, gobelo birê ket,dunigo pê ket? (* doşav, pale, hêstir)

- Du jin a digotine du mêr a: Hern kurên me, werin mêrên me, babên hingo xezwîrên me.
(* Du mêra jin bi jinî bi daykên wan kirbû.)

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



Agirî

- Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:
- www.Kurdistanmedia.com
- www.Agirimedia.org
- rojnamaagiri@gmail.com
- www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (313)

# Asime Cehangîr: Îdamkirin û binpêkirina mafê kêmaniyan di Îranê de berdewam e

**Reportera taybet ya mafê mirovan Asime Cehangîr di rapora xwe ya şeş mehên destpêka sala 2017`an de, ragehand ku ew nîgeranê îdaman di Îranê de, û binpêkirina mafê kêmaniyên olî di vî welatî de ye.**

Asime Cehangîr ragehand ku di Îranê de îşkenceya derûnî û fîzîkî berdewam e. Birîna endamên leşê mirovan û heya derxistina çavê tawanbaran wekî qesas dirêjî heye. Girtî jî di rewşeke nebaş de ne, û alîkariyên pizişkî nagihîjin destên wan.

Derheq destbiserkirina rojnamevanan jî, wê ragehand: 12 rojnamevan û 14 çalakên torên civakî hatin destbiserkirin, û destbiserkirin û îşkence û dadgehîkirina kêmaniyên olî jî wê nîgeran dike. Derheq rewşa jinan jî di Îranê de, Asime Cehangîr ragehand ku mafê jinan di gellek biyavan de tê binpêkirin.

Di hember axavtinên Asime Cehangîr de, Mihemed Hesenînijad nûnerê rejîma Îranê, ew rapor siyasî xwend, û ragehand birêveçûna hilbijartina serkomariyê û şêvran di Îranê de, nîşana başbûna rewşa mafê mirovan e, û serkomar jî bi qewlên ku di warê parastina mafê mirovan de dane xelkê, kariye serkeve.

Navbirî ragehand ku wê demê ewê bihêlin reportera mafê mirovan serdana Îranê bike ku ji bo 192 welatên din jî biryarekî weha bihê dayîn.



# Koşka Spî: Tramp daxwaza hevdîtinê ji Ruhanî nekiriye

**Koşka Spî roja Duşemiyê ew îdiaya rejîma Îranê ret kir ku meha borî Tramp daxwaza hevdîtinê ji Ruhanî kiribe.**

Sara Hakbî Sindirz berdevkê koşka spî bi NBC ragehand ku Tehranê derev kiriye.

Nûçegihaniya Fars di raporekê de belav kiribû, ku serkomarê Amerîkayê di Civata Giştî ya NY de daxwaz kiribû ku Rûhanî bibîne.

Behram Qasimî berdevkê Wezareta Karê Derve ê rejîma Îranê roja Yekşemiyê di konferanseke çapemeniyê de ragehand: Amerîkayê daxwazeke bi vî awayî ji me kir, ku serkomar ew daxwaza wan ret kir.

Tramp destpêka meha Octoberê rêkevtina navikî ya Îranê ret kir, û pêdagirî kir li ser cardin sepandina tehrîman li dijî Îranê.

Di sala 2013`an de Obama û Hesen Rûhanî di dema sefera serkomarê Îranê bo Amerîkayê, pêwendiyeke telefonî encam dabûn.

Çend dehik dibe ku pêwendiyeke bi vî rengî di navbera serkomarên Amerîkayê û Îranê de tunebû.

Heya niha çendîn carî serkomarê Amerîkayê ragehandiye ku rêkevtina navikî bi Îranê re, xiraptirîn rêkevtin bûye, û rakirina tehrîman li ser rejîma Îranê destê wan zêdetir vekir bona destêwerdanên navçeyî, bi awayekî ku niha di hewla têkdana aramiya hemû herêmê de ye.



# UNSCO: Di deh salên borî de 930 rojnamevan di asta cîhanê de hatine kuştin

**Rêkxirawa zanistî-rewşenbîrî ya NY amara kuştina rojnamevanan li raserî cîhanê de, di heyama deh salên borî de belav kir.**

Rêkxirawa zanistî-rewşenbîrî ya NY (UNSCO) li bajarê Bon ya Alman ragehand ku di heyama salên 2006-2016`an, 930 rojnamevan li sertaserî cîhanê hatine kuştin, û sedan rojnameanên din jî birîndar bûne.

Li gora amara UNSCO`yê tenê di sala borî de, 102 rojnamevanî jiyana xwe ji dest dane, ku ji vê hejmarê zêdetir ji 94 kes ji wan rojnamevanê xwecihî bûn.

Ew rêkxiraw ku ser bi UN`ê ye, di raporekê de Efxanistan, Mekzîk, Yemen, Îraq û Sûriye di refa herî pêşê ya wan welatan de nav biriye, ku di wan welatan de metirsî li ser canê rojnamevanan hebûye, û zêdetirîn rojnamevan tê de hatine kuştin.

Îraq di sala 2016`an de, wekî welatê herî bixwîn bo rojnamevanan hatiye binavkirin, ku zortitîn rojnamevan tê de hatine kuştin.

